hejmar 50 - Havîn 2012

# KURMANCÎ

rojnameya taybetî ya Enstîtuya kurdî ya Parîsê li ser pirsên zaravayê kurmancî

Min ev nivîsî ne ji bo sahibrewacan
Belkî ji bo biçûkêd Kurmancan

Ehmedê Xanî
(Sedsala XVII)

# Civîna Ehmedê Xanî li Bazîdê

Civîna Kurmancî ya vê carê, rojên di navbera 30.06.12 – 7.07.12an de, li Bazîdê û di bin navê edîb û fîlozofê mezin yê neteweyê kurd Ehmedê Xanî de hat li dar xistin.

Ehmedê Xanî salên di navbera 1651 - 1707an de jîyaye. Wî, li cîhanê, berî peydabûn û belavbûna fikr û ramana neteweyî, ji bo avakirina dewleteke neteweyî, xwast ku kurdan di vî warî de hişyar bike. Rêyeke rast ji bo parastina hêjahîyên xwe yên neteweyî û avakirina welatekî yekbûyî, di bin alayekê de û serbixwe, ji parçebûna eşîrtîyê dûr, bide ber wan. Ji lewra digot:

*Ger dê hebuwa me ittifaqek*
*Vêk ra bikira me inqiyadek*

*Rûm û 'ereb û 'ecem temamî*
*Hemiyan ji me ra dikir xulamî*

*Tekmîl dikir me dîn û dewlet*
*Tehsîl dikir me 'ilm û hikmet*
*Temyîz-i dibûn ji hev meqalat*
*Mumtaz-i dibûn xwedankemalat*

Lê mixabin e, ku kesî guh neda şîretên wî. Beg, mîr, serekeşîr, axa û giregirên civata kurdan, desthilatdarên kurdan yên wê serdemê, ji van daxwazan re biyanî bûn, xwe nêzîkî van bîr û hizran nedikirin. Wan emirberîya biyaniyan, girêdanên xulamî û koletîyê di ser van daxwazan re didît. Ketibûn korerêyekê û encamên dahatîya xwe, yên qûl û qewmên xwe, yên zarokên gelê xwe yê kurd nedidîtin. Guh jî nedidan aqilmendên wek Ehmedê Xanî. Ji ber vê yekê, bang û dengê wî dibû wek bilûra ber guhê kerr.

Piştî çend sedsalên din, gava ku Kurdistan bû çend perçe, kurd hatin tarûmar kirin, puxteya banga wî hêdî hêdî hat fehm kirin. Lê, qareqar û barebar êdî bê feyde bû.

Belê, niha em li şaşiyên xwe werqilîn, me dît ku em çawan ketine rêyeke şaş û bêoxir…

Ji bo bilindnirxandina vê bang û dengê Ehmedê Xanî, edîbê xwedantaca zêrîn, Mem û Zîna şahesera neteweyê kurd, bavê kurdperwerîyê, me navê wî li civîna 50yî ya Kurmancî kir. Me di bin navê wî de û li bajarê ku wî xizmet dayê, li wir ku bi zanistê ve mijûl bûye û serê xwe lê danîye ser axa sar, civîna Ehmedê Xanî ya Kurmancî pêk anî.

**Di civînê de li ser van babetan hat kar kirin:**
Masî û masîvanî, gulûgîya – mêwe – hêşînahî –, pezxwedîkirin, termînolojîya pizîşkî û heşare.

Ev hevalên han beşdarî civînê bûn: Mistefa Aydogan (Mêrdîn), Rojen Barnas (Diyarbekir), Omîdê Mistefayê Celalî (Bazîd), Lezgînê Çalî (Barzan), Ehmedê Dirihî (Çewlik), Elîşêr (Wan), Xalidê Hekarî (Hekarî), Hemîd Kiliçaslan (Mêrdîn), Eyûb Kiran (Qerejdax), Selam Nûman (Qamişlo), Têmûrê Xelîl (Rewan), Reşo Zîlan (Agirî).

Em berhemên ji vê civînê li jêrê pêşkêş dikin.

# Termên zimannasîyê

Amadekar: Mistefa AYDOGAN
Newzad HIRORÎ

***Têbînî:** Ev babet berhema civîna 49an e û divîya di wê hejmara Kurmancî de bihata weşandin. Lê çi heyf ku di rûpelên wê de cih nemabû û em neçar man ku di vê hejmarê de biweşînin. Bila kedkarên wê li me negirin û xwendevanên me jî li me biborin..*

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| bi hev ve kirin | bitişmek | agglutiner, se joindre, se lier | agglutinate |
| bihevvekirî | bitişimli, eklemeli | agglutinant, agglutinatif | agglutinative |
| bihevvekirin | bitişim, bitişme | agglutination, liaison | agglutination |
| duziman | ikidilli | bilingue | bilingual |
| duzimanî | ikidillilik | bilinguisme | bilingualism |
| duzimanîya kesane | bireysel ikidillilik | bilinguisme individuel | individual bilingualism |
| duzimanîya tam | tam ikidillilik, ideal ikidillilik, dengeli ikidillilik | bilinguisme total | full bilingualism |
| malbata zimanan | dil ailesi | famille de langues | family of languages |
| şîfreguhartin | dil değiştirimi | alternance de codes | code switching, language switching |
| yekziman | tekdilli | monolingue | monolingual, monoglot |
| yekzimanî | tekdillilik | monolinguisme | monolingualism |
| zaravanas | lehçebilimci | dialectologue | dialectologist |
| zaravanasî | lehçebilim | dialectologie | dialectology |
| zaravayî | lehçesel | dialectal | dialectal |
| zarê demê | dönemsel dil | chronolecte | chronolect |
| zarê demî | dönemsel dile değin | chronolectal | chronolectal |
| zarê deverî | yöresel ağız | géolecte | geolect |
| zarê etnîkî | etnolekt | ethnolecte | ethnolect |
| zarê kesane | birey dil | idiolecte | idiolect |
| zarê zayendê | cinsiyet dili | sexolecte | genderlect, sexolect |
| zarê zayendî | cinsiyet dile değin | sexolectal | genderlectal, sexolectal |
| zimanê berxeter | tehlikedeki dil | langue en danger | endangered language |
| zimanê biyanî | yabancı dil | langue étrangère | foreign language |
| zimanê çêkirî | yapay dil, yapma dil | langue artifcielle | artificial language |
| zimanê efsûnê | büyü dili | glossalalie | glossalalia |
| zimanê nebingehîn | ikincil dil | langue seconde | embedded language |
| zimanê rojane | gündelik dil, günlük dil | discours familier, langage quotidien | colloquial speech |
| zimanê zarokan | çocuk dili | langage enfantin | child language, infant speech |
| zimanê zayendnêtar | cinsiyet yansız dil | langue à genre neutre | gender-neutral language |
| zimanên bêzayend | cinsiyetsiz diller (dilbilgisel olarak) | langues sans genre | genderless languages |
| zimanên bihevvekirî | bitişimli diller, eklemeli diller | langues agglutinantes | agglutinative languages |
| zimanên bireserî | belirtme(li) diller, akuzatif diller | langues accusatives | accusative languages |
| zimanên ergatîv | özegeçişli diller | langues ergatives | ergative languages |
| zimanên hevreh | akraba diller | langues apparentées | cognate languages |
| zimanên jihevvekirî | çözümleyici diller, yalınlayan diller, ayrışkan diller | langues analytiques, langues isolantes | analytic languages, isolating languages |
| zimanên kreol | kırma anadili | langues créoles | creole languages |

| | | | |
|---|---|---|---|
| zimanên lebatî | etken diller | langues actives | active languages |
| zimanên mirî | ölü diller | langues mortes | dead languages |
| zimanên neqalibdar | oynak dizilişli diller | langues non configurationnelles, langues flexionnelles | non-configurational languages, flexible languages |
| zimanên qalibdar | kalıplı diller, katı dizilişli diller | langues configurationnelles | configurational languages, inflexible languages |
| zimanên tewangbar | bükümlü diller, bükünlü diller | langues flexionnelles | [in] flectional languages, fusional languages, inflecting languages, flexional languages |
| zimanên tiketikî | şaklamalı diller | langues à clic | click languages |

# Dar - Arbre - Tree

**Amadekar: Ehmedê DIRIHÎ**

| **kurdî** | **latînî** | **tirkî** | **fransizî** | **ingilîzî** |
|---|---|---|---|---|
| asindar, hesindar, dêdar, dildar, dîndar, gelberû | *quercus Libani (regia)* | Lübnan meşesi | chêne du Liban | Lebanon oak |
| lûxpêre, xulpêre | *quercus petraea pinnatiloba* | sapsız meşe | chêne rouvre, chêne sessile | sessile oak |
| tepedor, dara tepedorî | *quercus suber* | mantar meşesi | chêne-liège | cork oak |
| şabî | *salix aegyyptica* | mısır söğüdü | saule égyptien | egyptian willow |
| bîya qufikan, duberxik, germajo | *salix caprea* | keçi söğüdü | saule marsault, saule des chèvres | goat willow |
| reşebî | *salix nigra* | kara söğüt | saule noir | black willow |
| ajik, behîva tehl, qijbehîv, behîva kovî (bejî) | *amygdalis amara* | acı badem | amandier amère | bitter almond tree |
| bizmik | *amygdalis amara* | alıç | aubépine | hawthorn |
| dara tirşe | *oxydendron* | | | sourwood |
| sêvetirşk, sêvtirşk | *malus silvestris* | bir tür yabani elma | boquettier, pommier sauvage ou pommier des bois | crab apple |
| nermedar | *periploca graeca* | yunan ipekotu | périploque grecque | silk vine |
| zan | *fagus sylvatica* | avrupa kayını | hêtre commun | european beech |
| **Mêwe** | | **Meyve ağacı** | **Arbre fruitier** | **Fruit tree** |
| şilor | *prunus domestica* | mürdüm eriği | prunier | common plum tree |
| salor, dembûl | *prunus laurocerasus* | kara erik | laurier-cerise | cherry laurel |
| godîş | *crataegus tanacetifolia* | ayva alıcı, sarı alıç | épines d'orient | tansy-leaved thorn |
| muşmule | *mespilus germanica* | muşmula, döngel, beşbıyık | néflier d'Allemagne | medlar tree |
| yengîdunya, êngîdunya | *eriobotrya japonica* | yenidünya, malta eriği | néflier du Japon | loquat |
| **Gulûgîya û hêşînahî** | | | | |
| kitmînk | *raphanus raphanistrum* | yabani turp | radis ravenelle | wild radish |
| bacik, çoxik | *capsicum annuum* | biber | piment | capsicum |
| meymesk | *aethusa cynapium* | it kişnişi, yabani maydanoz | petite ciguë, faux-persil | fool's parsley |
| qicî | *cardaria draba* | kedi otu, yabani tere | passerage drave, pain blanc | whitetop |
| zuxal | *cornus* | kızılcık sopası, kızıl çubuk | cornouiller | cornel, cornelien cherry |
| gîyareng, çirix | *datisca cannabina* | renk otu | chanvre vivace | false hemp |
| kulindok | *mandragora officinarium* | adamotu | mandragore | mandrake |
| hevîzar, belghewêz, belga birînan | *plantago lanceolata* | sinirotu | plantain lancéolé | ribwort plantain |
| tûsî | *eryngium billardieri f.* | eşek dikeni | variété de chardon | common name: eryngo |
| agirok | *ranunculus ficaria* | basur otu, düğün çiçeği | ficaire fausse-renoncule | lesser celandine |
| gileso, gilîso, so | *heracleum trachyloma* | tavşancıl otu | berce | common name: hogweed |
| kuvarkên helizê | *pleurotus eryngii ferulae* | kayın mantarı | pleurote de la férule | king trumpet mushroom |
| tîjtîjok | *ornithogalum narbonense* | akbaldır | ornithogale de Narbonne | Narbonne star-of-Bethlehem |
| xîyarok | *capparis spinosa herbaceae* | kebere | câprier commun | common name: caper |
| zîwan | *cephalaria procera* | yüksek pelemir | scabieuse | cephalaria |
| dinêb, dimor, dimol, zîwan | *lolium temulentum* | delice | ivraie enivrante | darnel |
| birakardî | *calla palustris* | bataklık nergisi | arum des marais | calla |
| cehnem-behişt, zirbeybûn, kulîlkmast | *anthemis arvensis* | köpek papatyası | anthémis des champs | corn chamomile |
| çilkêsan | *leucojum vernum* | gölsoğanı | nivéole d'été | summer snowflake |


Asindar, hesindar, dêdar, dildar, dîndar, gelberû
*Quercus libani (regia)*


Lûxpêre, xulpêre
*Quercus petraea pinnatiloba*


Tepedor, dara tepedorî
*Quercus suber*


Şabî
*Salix aegyyptica*


Bîya qufikan, duberxik, germajo
*Salix caprea*


Reşebî
*Salix nigra*


Ajik, behîva tehl, qijbehîv, behîva kovî (bejî)
*Amygdalis amara*


Dara tirşe
*Oxydendron*


Sêvetirşk, sêvtirşk
*Malus silvestris*


Nermedar
*Periploca graeca*


Zan
*Fagus sylvatica*


Salor, dembûl
*Prunus laurocerasus*


Şilor
*Prunus domestica*


Godîş
*Crataegus tanacetifolia*


Muşmule
*Mespilus germanica*


Yengîdunya, êngîdunya
*Eriobotrya japonica*


Kitmînk
*Raphanus raphanistrum*


Bacik, çoxik
*Capsicum annuum*


**Meymesk**
*Aethusa cynapium*


**Qicî**
*Cardaria draba*


**Zuxal**
*Cornus*


**Gîyareng, çirix**
*Datisca cannabina*


**Kulindok**
*Mandragora officinarium*


**Hevîzar, belghewê, belga birînan**
*Plantago lanceolata*


**Tûsî**
*Eryngium billardieri f.*


**Agirok**
*Ranunculus ficaria*


**Gileso, gilîso, so**
*Heracleum trachyloma*


**Kuvarkên helizê**
*Pleurotus eryngii ferulae*


**Tîjtîjok**
*Ornithogalum narbonense*


**Lûxpêre, xulpêre**
*Quercus petraea pinnatiloba*


**Xîyarok**
*Capparis spinosa herbaceae*


**Zîwan**
*Cephalaria procera*


**Dinêb, dimor, dimol, zîwan**
*Lolium temulentum*


**Birakardî**
*Calla palustris*


**Cehnem-behişt, zirbeybûn, kulîlkmast**
*Anthemis arvensis*


**Cilkêsan**
*Leucojum vernum*

# Heşare - Heşere - Insecte - Insect

**Amadekar: Eyûb Sînan KIRAN**

**Têbînî:**
Di civîna Kurmancî de li ser peyva *heşare* gotûbêjeke pir dûrûdirêj hate kirin. Di nav gencîneya peyvên kurdî de hîç peyvek nehat dîtin ku tam bergindê heşareyê be. Di zimanê ewropî de jê re *insect*/ *insekt* tête gotin ku ji peyva *insectum*-a latînî hatiye. Di hemû zimanên rojhilatî de jê re heşare/ haşere/ haşerat dibêjin ku ji zimanê erebî ye.

Peyvên kurdî yên wek; bihuk/ buhuk, marûmûr, mêşûmoz, kêzûmêz, kurm/ kirm û hwd, her yek ji van ji bo mebesteke taybetî ye û maneya heşareyê nadin. Peyva heşareyê di nav hemû kurdan û zaravayên kurdî de heye û tête bi kar anîn. Nedibû em peyvekê daynin ku ji maneya ku em dixwazin gelekî dûrtir be û di zimanê me de bibe sedemên sergêjîyekê. Ji ber vê me çêtir dît ku em peyva heşareyê bi kar bînin.

| kurdî | latînî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|---|
| heşare | *insectum* | haşaret | insecte | insect |
| **Kêzik** | ***Coleoptera*** | **Böcekler** | **Coléoptères** | **Beetle** |
| kêzika gû, kêzika rêxê, buluça rêxê | *scarabaeus sacer* | bokböceği | bousier | dung beetle |
| kêzika reş | *carabus* | karafatma | carabus | carabus |
| kêzika fisek | *brachinus crepitans* | osurgan böceği | bombardier commun | stink beetle, bombardier beetle |
| **Mêş û moz** | | **Sinek ve arılar** | **Mouches et abeilles** | **Flies and bees** |
| mozqirt, zirqit, mozqirtik, moza zer, mozezer, zirqîçk | *mellinus arvensis* | sarıca, yaban arısı | melline des champs | field digger wasp |
| kermoz, moza sor, mozebeş, stêng | *vespa crabro* | eşek arısı | frelon européen | hornet |
| mêşa hespan | *hippobosca equina* | at sineği | taon | horset fly, gad fly |
| mirmirk | *simulium spp* | üvez sineği | phlébotome | buffalo gnat |
| qûnteşî, serteşî | *odonata* | yusufçuk | libellule | dragonfly |
| hespikê nebiya, hespê bûkê, hespê gîhê, hespê Fatma nebî | *mantis religiosa* | peygamber devesi | *mante religieuse* | praying Mantis |
| pindik | *argas persicus* | kümes kenesi | tique de vollail | fowl tick |
| qirnî, qijnik, tepî, gijnî, gene, kene | *ixodes ricinus* | kene | tique | tick |
| hezarpê, çilpê, pirpêtk, zîvê duser, jarmar, şarmar, bijmar, zof | *scolopendra morsitans centipede* | kırkayak | scolopendre | centipede |
| masîyên keran, kermasî | | iribaş, kurbağa yavrusu | têtard | tadpole |


**Kêzika gû, kêzika rêxê, buluça rêxê**
*Scarabaeus sacer*


**Kêzika reş**
*Carabus*


**Kêzika fisek**
*Brachinus crepitans*


**Mozqirt, zirqit, mozqirtik, moza zer, mozezer, zirqîçk**
*Mellinus arvensis*


**Kermoz, moza sor, mozebeş, stêng**
*Vespa crabro*


**Mêşa hespan,**
*Hippobosca equina*


**Mirmirk**
*Simulium spp*


**Qûnteşî, serteşî**
*Odonata*


**Hespikê nebiya, hespê bûkê, hespê gîhê, hespê Fatma nebî**
*Mantis religiosa*


**Pindik**
*Argas persicus*


**Qirnî, qijnik, tepî, gijnî, gene, kene**
*Ixodes ricinus*


**Hezarpê, çilpê, pirpêtk, zîvê duser, jarmar, şarmar, bijmar, zof**
*Scolopendra morsitans centipede*


**Masîyên keran, kermasî**

# Masî û masîvanî

**Amadekar: Eyûb Sînan KIRAN**

**Destpêk**

Li gora xebateke zanistî di 2009an de li bakurê Kurdîstanê 50 kooperatîfên masîvaniyê hene. 1.586 masîvan endamên van kooperatîfan in. Di vê xebatê de 654 keştiyên masiyan hatine tesbît kirin.

Encama nêçîrê 6.355 ton/salê, dirêjahiya torên masiyan 1.029.000 m û 21.000 heb torên pînteran hatine tesbît kirin.

Bêyî van, 309 masîvanên bi serê xwe û 209 keştiyên masiyan bi hev re nêzîkî 7.824 ton/salê masî girtine.

Li gora van xebatan hilberîna masiyên avên hundurîn ên Kurdistana Bakur bi qasî nîvê yên Tirkiyê ye.

Ji van em fam dikin ku masîvaniya Kurdistana Bakur gelekî muhîm e.
Dewleta Tirkiyê neçîra masiyan bi qanûnê ve girê daye û kontrol dike. Li gora qanûnê mehên nîsan, gulan, hezîran, tîrmeh û tebaxê neçîra masiyan qedexe ye. Bêyî van mehan rojên musaîd neçîra masiyan dikare bê kirin.

Masiyên Gola Wanê dikarin tenê 60 rojên zivistanê bên girtin.
Şiklê neçîrê: masîgir torên xwe serê sibê diavêjin û êvarê berhev dikin, yan jî êvarê diavêjin û serê sibê berhev dikin. Masîgir torên xwe diavêjin kûrahiyê û ber bi qiraxan dikşînin.

**Masiyên Mala Badê**

1- Şelq (Şerq): Masiyan dixwin, dirêj in, goştê wan xweş e.
2- Şimşûl: Zirav û dirêj in, serê wan biçûk in, goştê wan ne bi kêr in. Mezinê wan bi qasî du bihostan mezin dibin. Havînê goştê wan bi mirov tahl têt.
3- Kerkerok: reş in, biçûk in (bihostek), donê wan pir e, goştê wan nayê xwarin, wexta mirov dibînin xwe bi tahtan ve dizeliqînin.

**Neçîra beraviyên çemê Batmanê**

Zivistanê di çeman û golên pir kûr de, qefikê tahtan cîhê kombûna wan e. Taht tune bin ew erdê vedidin di nav av, qûm û heriyê de ji xwe re qulikan çêdikin û dikevinê. Di wan qulan de bi destan tê girtin. Di girtînê de hostatî lazim e. Masiyên qulan celebê bi cisn in, rind in.
Di neçîra masiyan de koça masiyan tê şopandin. Tê zanin ku kînga koç dikin û ebûrê wan kînga tê. Masiyên bi cisn di serê biharê de ber bi hevraz diçin. Xwe li ava berfê digrin. Çûyina dema her celebî cûda ye.

Biharê bi misasan nêçîra wan dibe. Misas alîyek zixt e, alîyek labût e. Aliyê labûtê didin çerxê, mîna devê şûran tûj dikin. Neçîrvan bi misasên xwe dikevin nav avê, buhurên tenik û ji jor de bera ser masî didin. Neçîrvanên hoste bi vî awayî gelek masî digirin.

Payiza dereng jî berjêr diçin. Ew jî wek keriyê kûviyan, wek refê çûçikan qefle bi qefle berjêr dibin.

Şevên payizê bi sûkan diçin neçîrê. Guliyê dara meşeyan li ber devê şonikan ta bi ta vediçirînin. Veçirandin û bi şûn de eger mirov agir pêxe êdî venamire. Bi sûk û misasan diçin neçîra masiyan. Wexta masî ronahiya sûkan dibînin, dirikinin (*Rikinandin: li cîhê xwe sekinîn*).

**Bi tora ser darika neçîra masiyan:**

Destîkeke mîna misasa serê wê çardar û dora wê bi dareke mîna gopal badayî ve tor tê giredan û bi vê torê li cihên ava şolî masî tên girtin.

**Bi pîjan neçîra masiyan:**

Pîj mîna tîreke qalind e, di serî de bizmarên vaca û dawiya pîj bi benekî zexm ve girêdayî ye. Li ser buhura wexta masî tên dîtin, pîj tê avêtin, serê pîj di masî de dihere hundur û bizmarên vaca asê dikin, mirov benê pîj bi şûn de dikişîne, masî jî pê re tê.

**Bi torên mezin neçîra masîyan:**

Heskîfî li ser kelekan û bi torên mezin masiyan digirin, di dema kevn de ji Heskîfê hetanî Mûsilê masî dihatin girtin û dibirin difrotin.

Bi sepetan (selêkan) jî masî têne girtin.

| | | | |
|---|---|---|---|
| Masîvanî | balıkçılık | fish farming | pêcherie, pisciculture |
| Masîvan | balık üreticisi, balıkçı | pisciculturist | pisciculteur |
| Masîgir | balık tutan, balıkçı | fisher, fisherman | pêcheur |
| Masîgirî | balıkavlama, balıkavcılığı | fishing | pêche |

**Di çem, gol, golên piçûk, bendav û bêrmên avê yên Kurdîstana Bakur de hinek celebên masiyan:**

| kurdî | latini | tirki | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|---|
| **beneksor**: li wîlayeta Wanê navçeya şaxê di çemê Kanîspîyê de nû hatiye dîtin | *salmo tigridis* | alabalık | truite du Tigre | Tigris trout |
| **deqsor, masîxatûnk, sorbelek**: li ser kêleka wî 10-12 deqên sor hene | *salmo trutta macrostigma* | alabalık | truite à grosses taches rouges, truite saumonée | brown trout |
| **masîgur**: di çemê Dîcleyê û hemû şaxên wê de hene | *aspius vorax* | sis balığı (kocaağız) | aspe | asp |
| **terîx:** masiyê gola Wanê | *alburnus tarichi* | inci kefali | darekh | tarek |
| **şînok** | *alburnus mossulensis* | Musul kolyozu (inci) balığı | ablette de la région de Mossoul et d'Anatolie | bleak |
| **şebot,** şabot, şebût : çemê Dîcle û hemû şaxên wê de hene | *barbus lacerta* | bıyıklı balık | barbeau | barbel |
| **sirink** : sering, siring, sêlêv. Siring masîyekî bi cisn e, gelekî mezin dibin. Ew berê dibin cewr, paşê dibin masîyê mezin. Pelikên wan mezin in, goştê wan zaf xweş e | *luciobarbus capito* | kocabaş bıyıklı balığı | variété de gros barbeau à la chair savoureuse | bulatmai barbel |
| **cer, cero:** masiyê çemê Dîcleyê ye, di nav celebên masiyan de yê herî mezin dibin e. | *luciobarbus esocinus / luciobarbus xantopterus* | bıyıklı turna balığı maya balığı | mangar brochet à barbillons | mangar barbel needle fish |
| **zereke, zerdemasî, pirpas** (Mala Badê), **sîraz**: masiyê gola Xezerê, Dicle, Xinûs û besta Kilîs û Tercanê ye. | *capoeta capoeta umbla* | Dicle sarı balığı | variété de poisson d'eau douce qu'on trouve dans le bassin du Tigre et de l'Euphrate | fresh water fish found in the Tigris and the Euphrates |
| **berat, çepîç**: di çemê Dîcleyê û hemû şaxên wê de hene | *capoeta trutta* | bir tür Dicle alabalığı | variété de poisson d'eau douce qu'on trouve dans le bassin du Tigre et de l'Euphrate. | fresh water fish found in the Tigris and the Euphrates |
| **şebotê bersor (soreke)** : reng sore ye û masiyekî mezin e, berê dibin cewr. Di çemê Dicleyê û ava Botan de hene | *barbus(tor) grypus* | şabot balığı | variété de carpe de grande taille | variety of large carp |
| **behram, sergolik, qafgolık, faran** (bi zazakî). Serî û pelikên wî mezin in. dibin cewr, goştê wî spî ye û zaf xweş e | *squalius cephalus syn: leuciscus cephalus orientalis* | tatlı su kefalı | chevesne oriental à chair blanche et savoureuse | chub |
| **berrade, birrek, zikdêlik, sîlikxwir**: di çemê Mala Badê, çemê Goksuyê (çiyayê Mazî) de heye. | *cobitis kellei* | taşyiyenbalığı | variété de loche | loach |
| **devsor, bizir:** di çemê Dicleyê û hemû şaxên wê de hene | *carasobarbus luteus* | karazgöz, pullu sazan | variété de carpe à bouche rouge | kind of carp |
| **şelabela:** bi simbêl e. | *silurus triostegus* | Mezopotamya yayın balığı | silure | silurid |
| **zurî, zul**: di çemê Dicleyê û hemû şaxên wê de hene. | *chondrostoma regium* | kababurun | variété de chondrostome | kind of chondrostoma |
| **benî** (pasûr), **şoneke** (Mala Badê): di çemê Dicle û hemû şaxên wê de hene. | *cyprinion macrostomus* | benekli sazan | carpe tachetée | speckled carp |
| **marmasî** | *mastacembelus* | yılanbalığı | anguille | eel |
| **masîpank** | *cyprinus carpio* | aynalı sazan | carpe miroir | mirror carp |



**Beneksor**
*Salmo tigridis*



**Deqsor, masîxatûnk, sorbelek**
*Salmo trutta macrostigma*



**Masîgur**
*Aspius vorax*



**Terîx: masiyê gola wanê**
*Alburnus tarichi*



**Şînok**
*Alburnus mossulensis*



**Şebot, şabot, şebût**
*Barbus lacerta*



**Sirink: sering, siring, sêlêv**
*Luciobarbus capito*



**Cer, cero**
*Luciobarbus esocinus / Luciobarbus xantopterus*



**Zereke, zerdemasî, pirpas (Mala Badê), sîraz**
*Capoeta capoeta umbla*



**Berat, çepîç**
*Capoeta trutta*



**Şebotê bersor (soreke)**
*Barbus(tor) grypus*



**Behram, sergolik, qafgolık, faran**
*Squalius cephalus, syn: leuciscus cephalus orientalis*



**Berrade, birrek, zikdêlik, sîlikxwir**
*Cobitis kellei*



**Devsor, bizir**
*Carasobarbus luteus*



**Şelabela**
*Silurus triostegus*



**Zurî, zul**
*Chondrostoma regium*



**Benî (Pasûr), şoneke (Mala Badê)**
*Cyprinion macrostomus*



**Marmasî**
*Mastacembelus*



**Masîpank**
*Cyprinus carpio*

# Termsaziya pizişkî bi kurdî

**Amadekar: Lezgînê ÇALÎ**

## Termzanist

Berî ku derbazî pêşkêşkirina çend termekên pizişkî bibim, dixwazim ku bi kurtî behsa hindek binemayên termesaziya zanistî bikim.

Dibê bihêt zanîn ku termesaziya zanistî ya her zanisteke pişkek ji wê zanistê bi xwe ye. Bi gotineke dî, ku raman, têgeh û çem (çemik, konsept)ên nû di zanistan de peyda dibin, danûstandina li ser wan çemikan bê hebûna termê anko navên nû ji bo wan çênabin. ji bo mînak kesê ku nezane mîh û bizin ne yek in, nikare jî du navên cida li wan lawiran bike. Dibê li destpêkê mirov bi cidatî û newekheviya bûyeran, bûneweran, hestan û konseptan bihese, paşî dê ji bo wan navan peyda bike.

Ku kurdan çemên zanistî nebûne, term û navên wan çeman jî nebûne. Niha ku kurd bi xêra zimanên dî şehrezayên wan çem û konseptan dibin, dibê ji bo parastina paşeroja zimanê xwe bikin ku wan konsept û navan kedîyên zozanên zimanê xwe bikin. Zimanê ku nebe zimanê zanistan ber bi nemanê ve diçe, bila meşîna ber bi nemanê ne ewqasî lezgîn jî be. Ez li ser vê mijarê gelek sekinîme û ji bo neêşandina sere we, wan gotinên xwe dubare nakim.
Lê, di her termesaziyeke zanistî de, pêşkevtina zanistî bi xwe û pêşkevtina termesaziyê bi hev re û mil bi milê hev in. Arêşeya termesaziyê, wekî arêşeyeke pir tengasî, tenê ji bo wan zimanên mîna kurdiyê ye ku jîngeha zimanî ne jîngeheke zanistî ye. Anko, axivtinkerên wî zimanî bi xwe zanistê berhem naînin û tenê zanista berhemê xelkê dî dimezêxin.

Herwekî me got, zanist û zarevesaziya wê mil bi milê hev pêş dikevin. Çawa ku zanist li goreyê hindek pirensîb û binemayan dihên ava kirin, zareveyên wan jî li goreyê hindek binemayên mişlaq û hevsû dihên ava kirin. Çawa ku konseptên nû, dahînan û nûkirinên nû di zanistan de piraniya caran hema ji nebûnê nahên û avahiya zanistî kerpûç li ser kerpûçî û kuçik li ser kuçikî hêdî hêdî dihêt nijinîn, term jî weha yek li ser ya dî dihêt ava kirin û ji bo her termeke nû ne hewce ye ku teker û çerx ji nû bihêt dahînan.

Ji bo mînak, dema amûreke nû ji bo pizişkan dihêt dahînan ku dikarin bi wê amûrê endamên hundirîn yên laşî bibînin, û navê wê dikin *hinavbîn* (endoscope), êdî navên guhartoyên taybetîtir yên wê amûrê çawa li goreyê hewcedariya çêdibin, wesa jî navên wan peyda dibin: *gedebîn* (gastroscope), *bendbîn* (arthroscope), *mîzdanbîn* (cystoscope), *zikbîn* (laparascope), … Kiryara dîtina wan endaman bi wan amûran jî dibit: *hinavbînî* (endoscopy), *gedebînî* (gastroscopy), …

Tenê dibê nehêt ji bîr kirin ku dibê term li goreyê konsept û têgehiştinên zanistî bi xwe bin. Ku term ne di cihê xwe de bin an şêlû û ne zelal bin, dê şaşiyên zanistî bi dû xwe re biînin û rastvekirina wan şaşiyan dem û wizeyê herduan xusar dike.

Mînakekê bidim. Li Başurê Kurdistanê, di dibistanên soranî de, ji bo peyva "*thermometer*" a inglîzî peyiva "*germapêw*"-ê hat bi kar anîn. Bi dîtina min ev peyiv şaş e, û dê mejî û hişê zaroyên ku bi wê peyivê dihên perwerde kirin tevlihev bike. Çima?

Di fîzîkê de du çem anko konsept hene ku ji hev cida ne: yek "*heat*" e ku coreyek ji coreyên enerjî anko wizeyê ye. Ya dî, "*temperature*" e ku navincîna bezayî anko sur'et (*velocity*) ya molekul in anko atomên keristeyekê ye. ji bo baştir têgehiştina ji van herdu çeman dê zêdetir ruhin bikim.

"*Heat*" anko enerjiya germayî ya ava gola Wanê ji enerjiya germayî ya peyaleyeke çayê ku aveke sed dereceyî tê de ye zêdetir e. Lê "*temperature*" anko navincîna bezayî ya molekulên ava peyaleya sed dereceyî ji temperature anko navincîna bezayî ya molekulên avê yên gola Wanê zêdetir e.

Di kurmanciyê de, hindî ku ez dizanim, peyiva "*şirtêhn - şirtîn*" an "*têhnşir - tînşir*" heye. Ramana wê ew e ku têhna wî/wê wekî ya şîrê memikên dayikê anko laşê mirovî ye û devê mirovî an destê mirovî naşewitîne. Dema sope an tiştekê gelek sincirî anko gerim hebe, dibêjin gelek bi têhn e, anko têhn jê diçe, mirov nikare lê nêzîk bibe an destê xwe li wê bide. Wekî ez dibînim, têhn beranberî temperature a inglîzî ye ne germa. Lewa, thermometer ku temperaturê dipîve, dibê bi kurdi bibe "*têhnpîv* - *tînpîv*", ne *germapîv*.

Dema zaro bi şaşî bihêt fêrkirin ku thermometer germapîv e, wî çaxî dê konseptên di hişê wî de tevlihev bibin, nemaze dema ku zêdetir hînî fîzîkê û wan konseptan bibe. Çareseriya vê ew e ku ji destpêkê koma hemî konsept û çemên wekhev û nîzîkî hev û dijberî hev li ber çavan bihên girtin û paşî termên nû li goreyê wan bihên hilbijartin an çêkirin.
Di termên zanistî da, hindek tiştên pergalanî anko sîstematîk hene. ji bo mînak, di kîmyaya endamanî de, hindek pêşgir û paşgir û navgir hene ku hema bi qasî keriste û materiyalên kîmyayî destkirî ne. Dema alkuholeke nû bihêt dîtin an çêkirin, li paşiya navê wê dibê paşgira "*-ol*", ku ji alkuholê hatiye, hebe: *methanol*, *ethanol*, *propranol*, … ji bo piraniya malbatên keristeyên kîmyayî nav bi vî rengî li goreyê hindek "lihevhatinan" di navbera zanayên wan zanistan de dihên çêkirin. Dema keristeyêkê nû dihêt dîtin, êdî nav ji sifrê an ji nebûnê nahên çêkirin. Avahiya zanistî kuçik bi kuçik, ber li ser berî, dihêt nijinîn. Kes avahiya berê xapûr û wêran nake. Huner ne xerabkirin e, huner avakirin e.
Di termesaziya zanistî de, dema çem an konsepteka nû ya giştgir û gelemperî peyda dibe, terma wê çemê jî bi wî rengî giştgir û gelemperî dihêt danan. Ji bo mînak, dema di jînzanistî anko biyolojiyê de behsa diyardeyeke jînzanistî ya wekî avisbûnê dikin, êdî avisiya mişkekê, çêlekê, jinekê, û şajinekê yek e. Term her ew term e. Lê, di civatên ne zanistî da, mîna kurdan, çêl avis dibin, lê jin ducan, dugiyan, şirr, bi-hemil,… Kurd dikarin niha jî di meclisên mirovên maqûl de, li malê, wekî berê bikin. Lê, mixabin di termên zanistî de jî hêşta ev edet ber nedaye.
Termên zanistî yên herî baş ew in ku "bizên" anko em bikarîn termên nû ji wan çêbikîn. Di vî warî da, bi dîtina min ev saloxetan gelek ji sivikî û kurtiya terman giringtir e. Ji bo mînak, peyveke zanistî heye ku ji bo wan molekul an atomên keristeyan dihêt bi kar anîn ku elektronek an çend elektronên kêm an zêde hebin. Atomeke sodiyumê sanahîtir elektronekê dide atomeke klorê û xwê ya ku em dixwin ji têkhilbûna wan herduan çêdibe. Atomên weha bi inglîzî " *ion*" in. Bi kurdi jî mirov dikare ji wan re her vî navî bixebitîne. Lê, peyveke dî ya inglîzî ji ion-ê zaye, ew jî *ionization* e. Kurdan (tirk û farisan jî) wekî peyva *ion*-ê ev peyva duyê jî wergirtiye. Bi vî rengî dawiya wergirtina peyvên ji zimnaên biyanî nahêt û li dawiyê tenê dê hindek daçek û artîklên biçûk ji zimanê me bimînin. Bi dîtina min, dibê ion çawa ku di zimanê inglîzî de dizêt, wesa jî di kurdiyê de bizêt û li şûna peyva ionizationê ji bo me kurdan du zaroyên bi navên ayonandin û ayonînê biîne. Wî çaxî peyva *ionized* a inglîzî jî dê xwîşkeke kurdi a bi navê *ayonandî*-yê hebe. Ev saloxeta peyvên zanistî giringtirîn saloxeta termsaziyeke zanistî ye. Ji ber çend sedeman: peyvên ji bo çemên nêzî hev ji nêzîkiya deng û rengên peyvên wan çeman jî dihên niyasîn. Gramer û rêzimana zimanê kurdi namire û bi berdewamî di warê avakirina peyvan de di xebatê de dimîne. Kurd dizanin ku zimanê wan jî çalak û zindî ye û psîkolojiya wan jî xort dibe, baweriya wan bi xwe û şiyanên zimanê wan xorttir dibe…

## Termzanistê Pizişkî

Berî rêzkirina hindek peyvên zanistî ji bo pizişkiyê, dikim ku hindek paşgir û pêşgirên pêdivî ji bo hemî zanistên nûdem bibêjim.

### Hindek paşgirên pêdivî

**-Kulî**: Yek ji paşgirên gelek pêdivî di termzaniya pizişkî de paşgirek e ku ji bo navkirina nesaxiyên hewdanên endamên laşî dihêt bi kar anîn. Ev paşgir di zimanê inglîzî de wekî "*aytîs*" dihêt bilêvkirin, di zimanê fransî û almanî de wekî "*ît*", lê nivîsîna wê di wan zimanan de yek e. Her yek li goreyê xwe bi lêv dike: *pneumonitis, nephritis, arthritis, arthritis, meningitis, otitis, congenctivitis*,…

Di kurdiyê da, mirov dikare paşgira "kulî"-yê li şûna wê bixebitîne: memikkulî (*mastitis*), pişikkulî (*pneumonitis*), kezebkulî (*hepatitis*), dilkulî (*carditis*), lenfkulî ()…

**–Bîn û –bînî:** Du ji paşgirên dî yên ku di pizişkiyê de gelek dihên xebitandin "*-scopy*" û "*-scope*" in. Min li jorê behsa wan kir.

**–Kelêşî:** Paşgireka dî "*-tomy*" ye. Ramana wê "birrîn", "şeqkirin", "kelaştin" e. Di kurdiyê de mirov dikare "-kelêşî"-yê li şûna wê bixebitîne: laşkelêşî (*anatomy*), perdekelêşî (*fasciotomy*), …

**–Jêkirin:** Paşgireka nêzîk ji ya berê "*-ectomy*" ye. Ramana wê jêkirin an havêtin e. Di kurdiyê de, mirov dikare "-jêkirin"-ê bixebitîne: gurçikjêkirin/gulçîsikjêkirin (*nephrectomy*), mîzdanjêkirin (*cystectomy*), libjêkirin (*lobectomy*),…

**–Derkelêşî:** Paşgira sêyê ji vê rêzê, "*-ostomy*" ye ku ji bo kumkirina endaman û danan boriyan di nav wan de dihêt xebitandin. Dibe ku kurdiya wê tiştekê wekî "-derkelêşî"-yê be: gurçikderkelêşî (*nephrostomy*), kolonderkelêşî (*colonstomy*), …

**–Kêşî:** Paşgireka nêzîkî vê, "*-centesis*" e. Ramana wê valakirin an av jê keşan e. Kurdiya wê dikare bibe "-kêşî": sîngkêşî (*thoracocentesis*), bendkêşî/gehkêşî (*arthrocentesis*), zikkêşî (*paracentesis*),…

**–Dirûn:** Paşgira bervajiyê van tevan "*-rhaphy*" ye. Kurdiya wê dikare "-dirûn" be: fitiqdirûn (*herniorrhaphy*).

**–Nîgar û -nîgarî:** Du paşgirên dî "*gram*" û "*-graph*" in ku di peyvên ne-pizişkî yên mîna telegram û telegraph-ê de jî hatine xebitandin. "*-gram*" nîgar anko nivîsa berhema pêvajoya "*-graph*" ê ye. Di kurdiyê de, bi dîtina min, "-nîgar" ji bo berhemî, û "-nîgarî" ji bo pêvajoyê di cihê xwe de ne: memnîgar/memnîgarî (*mammogram/mammography*), tînîgar/tînîgarî (*radiogram/ radiography*), …

**–Pîv û –pîvî:** Du paşgirên dî "*-meter*" û "*-metry*" in. "*-meter*" alav an amûra pîvanê ye û "*-metry*" pêvajoya pîvanê. Bi kurdî mirov dikare, bi rêz, "-pîv" û "-pîvî"-yê bixebitîne: têhnpîv (amûrê pîvana têhnê: *thermometer*), têhnpîvî (pêvajo anko kiryara pîvana têhnê: *thermometry*) …

**–Andin û –în:** Du paşgirên herî giring di pizişkiyê (û di hemî zanistên dî de) paşgirên çêkirina lêkeran in. ji bo çêkirina lêkeran "*-ize*", û "*-fy*" dihên xebitandin. Ji bo mînak dema keristeyek bibe ayon (*ion*) dibêjin ew keriste "ayonîze bûye", dema keristeyek bibe wekî sabûnê "sabonîfîke bûye". Bi kurdî, mirov dikare "-andin" û "-în" ê bixebitîne. ji bo mînak ayonandin (awayê gerguhêz) û ayonîn (awayê negerguhêz) ji bo *ionize*-ê di cihê xwe de ne: sabonîn/sabonandin (saponify), tevizandin (*anesthetize*), ruxguherandin (*modify*), karevandin (*electrify*), gloverîn/gloverandin (*globalize*), nûjenandin/nûjenîn (*modernize*), …

### Hindek pêşgirên pêdivî

**Gir- û hûr-:** "*Macro-*" û "*micro-*", bi kurdi piraniya caran mirov dikare, bi rêz, li şûna wan "gir-" û "hûr-"ê bixebitîne: girpêl (*macrowave*), hûrpêl (*microwave*), giraborî (*macroeconomy*), hûraborî (*microeconomy*), girkiloxî (*macrocephaly*), hûrkiloxî (*macrocephaly*),…

**Kêm- û pir-:** Du pêşgirên dî hene, "*hypo-*" û "*hyper-*" . Bi kurdi mirov dikare li şûna wan kêm- û pir-ê bixebitîne. Kêmpestî (*hypotension*), pirpestî (*hypertension*), kêmçalak (*hypoactive*), pirçalak (*hyperactive*), kêmalbumînxwînî (*hypoalbuminemia*), piralbuminxwînî (*hyperalbuminemia*), kêmşekirxwînî (*hypoglycemia*), pirşekirxwînî (*hyperglycemia*),…

**Zir-**: Yek ji pêşgirên bi kêr ku di gelek zanistan de heye. Kurdiya wê dikare zir- be. Wekî, zirnav (*pseudonym*), zirzanist (*pseudoscience*), ziravisî (*pseudopregnancy*),…

**Nav- û (hin)dur-**: Ev jî du pêşgirên giring in. "*Inter-*" behsa tişt an tiştên navbera du an çend tiştên dî dike. Wekî "*international*" ku heta niha di kurdiyê de wekî navneteweyî hatiye paçivandin. Pêşgireka dî, "*intra-*" ye ku behsa tişt an tiştên nava anko hundirê tiştekî bi tenê dike. Wekî "*intra-abdominal*", anko hundirê zikî. Mînakeke dî. Gava mirov behsa têkhilîyên çend kultur û ferhengan bike dê terma "*intercultural*"-ê bixebitîne (bi kurdi: navferhengî, navkulturî), lê gava behsa têkhiliya pêkhate û keriyên cida-cida yên nava ferhenhengekê bi xwe bikîn wî çaxî dibêjîn "*intracultural*" (bi kurdi: durferhengî an hundurferhengî). Mînakên dî: navdepmilanî (*interscapular*), navkesanî (*interpersonal*), hundur/durxaneyî (*intracellular*), navxaneyî (*intercellular*), hundur/durzikî (*intraabdominal*), …

**Jêr-, jor-, ser-, bin-:** Pêşgira "*infra-*" û "*sub-*" ji bo diyarkirina cihê tiştekî ku nizimtir ji yê dî be dihêt bi kar anîn. "*Infrared*" pêleke ruhniyê ye ku li bin pêla sor e (jêrsor). "*Submarine*" gemiyek e di bin astê deryayê de dimeşe (jêravgemî). "*Ultra-*" û "*supra-*" ji bo cihê bilindtir in: "*ultraviolet*" ji bo pêla jortir ji pêla binefş e (jorbinefş), "*suprarenal*" gumtilekê li ser gurçikê ye (jorgurçik).

**Dî-, ber-**: Pêşgireka dî heye ku di gelek zanistan de dihêt xebitandin û ji bo diyarkirina ramaneke nêzîkî ramaneke dî an cihekî an tiştekî dihêt ku ne bi tivavî wekî ya dî ye. Peyva "*metacarpal*" ew hestî ne ku dikevin navbera zenda destî û tivilan (berzend). "*Metamorphosis*" pêvajoya guhartinê bo kelwaş anko morfeke dî ye (dîkelwaşîn). "*Metaplasia*": pêvajoya werara xaneyên laşî ber bi aliyeke dî ku ne aliyê xweriskî yê werara wan e, mîna seretan anko şêrpenceyê (dîgeşî).

# Ferhenga pezxwedîkirinê

**Amadekar: Eyûb Sînan KIRAN**

## Destpêk

*Li gora îstatistîkên demên dawî li bakurê Kurdîstanê nêzîkî 30.000.000î pez hene. Bi texmînî, li hemû welat nêzîkî 50.000.000î pez têne xwedî kirin.*

*Goşt û qatixê ji şîrê pez ji bo xwarina însên, hiriya pez ji bo tekstîlê gelekî muhîm e. Ji çermê pez jî rind tê îstifade kirin. Lewma pezxwedîkirin karûbarekî bingehîn e.*
*Ji xwe li gora xebatên arkeolojîk pez di dema neolîtîk de, belkî 10 000 sal berî nika li Herêma Hîvika Bixêrûbêr (Fertile Crescent) ji formên biyanî hatiye kedî kirin û niha jî li vê herêmê hîn formên bejî hene.*

*Ji kedîkirinê û bi vir de, pratîka li ser karûbarê pezxwedîkirinê pir pêşde çûye. Di civata kurdî de, ji bo vê pêşdeçûna karûbarê pezxwedîkirinê termînolojiyeke dewlemend heye. Di vê gotarê de em ê vê termînolojiyê pêşkêş bikim. Ev termên pezxwedîkirinê bi taybetî ji herêma Milan e, ango ji Qerejdaxê hatiye berhev kirin.*

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| alênc kirin | koyun sürüsünü dinlendirdikten sonra otlatmak (Karacadağ ve Mardin ovasında sadece öğlen sonrası için denir) | emmener le troupeau au paturage, pour le faire paître (terme utilisé à Karacadag dans la région de Mardin seulement pour le pâturage de l'après-midi) | to graze the flock (of sheep) after rest (the term used in Karacadag and Mardin, only for the afternoon grazing) |
| alif | 1. yem, 2. yemlik | 1. fourrage ; 2. alimentation, manger, aliments pour bétail | 1. fodder, forage, feed (for livestock), feedstuff; 2. feeding-trough, manger, feeder. |
| afir | yemlik | mangeoir, dispositif d'alimentation pour le bétail | feeding-trough, manger, feeder for livestock. |
| alifandin, alif dayîn | yem vermek | donner du fourrage *(au bétail)*. nourrir le bétail, distribution du fourrage au bétail | to give feed (to livestock). |
| xwêdank | tuzluk | 1. salière ; 2. endroit où l'on dispose du sel pour le bétail. | salt lick |
| kulavê şivanan | kepenek | manteau de feutre de berger | shepherd's (felt) cloak |
| berçovk, berşivk | kepenekte sopanın konulduğu yer | poche du manteau de feutre pour le bâton du berger | in the shepherd's (felt) cloak, the part holding his stick |
| pezbend, derzbend | çoban uyurken koyunların kaçışı esnasında uyanmak için eli ile koyunun boyuna bağlanan bağ | corde liant un mouton ou une chèvre à la main du berger, pour l'alerter si elle cherche à s'éloigner. | shepherd's (felt) cloak |
| ço, çov, çûv, çomax | değenek | bâton | stick |
| mişrak | uzun sopa | long bâton | long stick |
| şiv | ince uzun değenek | bâton long et fin, baguette | thin and long stick |
| şiva gopal, gopalê şivanan | çoban bastonu | bâton du berger à l'extrémité recourbée | shepherd's crook, |
| elb | gerdel | seau (en bois), bac | pail, bucket (made of wood) |
| bêriya yekdanî | koyunların günde bir kez sağılması | une traite par jour | once-a-day milking |
| bêriya dudanî | koyunların günde iki kez sağılması | deux traites par jour | twice-a-day milking |
| meşka şîr, eyarşîr, şîrar | süt tulumu | outre à lait en peau de bête tannée | milk container made of animal skin |
| avrênc | yayılacak kadar olmayan yoğurdun konulduğu tulum | outre de yaourt qui n'est pas assez pour être barratté | container for partly curddled yoghurt |
| sêpîya meşkê | yayık yayma sehpası | trépied *(auquel on suspend la baratte 'meşk' pour la secouer)* | tripod on which to hand churner |
| meşka dew | ayran tulumu | baratte (en peau de génisse ou de chèvre, parfois en terre, suspendue à un trépied, dans laquelle on baratte le yaourt pour en extraire le beurre) | container made of foal ot goat skin to hold liquid yogurt while churning to make butter |

KURMANCÎ
MAGAZINE LINGUISTIQUE KURDE, supplément du Bulletin de liaison et d'information
© INSTITUT KURDE DE PARIS, 106, rue La Fayette, 75010 Paris - France, Tel. : 00 33 (0)1 48 24 64 64, *www.fikp.org*
*Directeur de la publication :* Reşo ZÎLAN, *Réalisation :* M. HASSAN, S. ILITCH, Y. KARADEMIR